Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 77
17'ê Çileya Pêşîn
Buha: 150 Tûmen

agirî

**Pîroz be 26ê sermawezê**

26ê Sermawezê, roja pêşmergên kurdistanê, roja wan Xebatkarên azadîxwaz û welatparêz yên gelê me ye ku bi salane di pêxema gehîştin bi maf û kerameta gelê xwe de, tekoşînekî birûmet dimeşînin. pêşmerge ew kese ye ku li hember rizgariya gelê xwe û nîştimana xwe de, canê xwe dikin gorî.

Em jî bi hinceta vê roja mibarek pîrozbahiyê ji tev pêşmergên aştîxwaz û gelê kurd bi giştî dikin.

**Desteya Weşana Rojnameya Agirî**

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## PDK Îranê Bû Endamê Rêxistina "Geneva Call"



3

## Daxuyaniya PDK Îranê, Derheq Azadkirina Kazim Darabî

4

## Bi Dawîhatina Çaremîn Festîwala Hêza Pêşmergên Kurdistanê



6

## Beşdariya Berçav A Jinan Di Partiya Civaka Demokratîk De



7

## WÊJEYA CÎHANÊ



10

# Pêşmerge Sembola Keramet, Fîdakarî Û Azadiyê




## Pîroz Be 26'ê Sermawez, Roja Pêşmergên Kurdistanê

**Pêşmerge Ey Sembola Rizgarî, Berxwedanî Û Cangorîtiyê, Ey Nîşan Û Berjenga Qehremanetî Û Mêrxasiyê, Ey Evîndarê Eşq Û Azadiyê, Ey Rûgeha Evîndar Û Azadîxwazan, Ey Xebatkar Û Parêzvanê Maf Û Kerametê, Ey Şoreşvanê Aştîxwaz, Ey Xebatkarê Netirs Û Mandînenas Roja Te Pîroz, Nav Û Pêgeha Te Jî Herweha Li Nav Dil Û Li Ser Zaran Be**

# Peyama Komîsyona Siyasî – Nizamî Ya PDK Îranê, Bi Hinceta 26’ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyên Kurdistanê

Xelkê azadîxwaz yên Kurdistanê!
Pêşmergeyên mandînenas û xweştivî!
Beşdarên rê û resma 26’ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyên Kurdistanê!
Hevalên Pêşmerge!

Ji aliyê Komîsyona Siyasî – Nizamî a PDK Îranê ve pîrazbahiya Roja Pêşmergeyên Kurdistanê ji we dikim.

Îro roja rêzgirtin ji wan xebatkaraên Kurdistanê ye ku jiyana xwe ji bo azadî û rizgariya gelê xwe danîne.

Ew şoreşvanên ku bi bîr û bawer, hizr, zanist û karîna xwe ji bo xizmetkirin bi gelê xwe terxan kirine û di hemû warên xebatê de amade ne. Bi dengê xwe, bi çeka xwe û bi pênûsa xwe li hember dujminên gelê xwe de sekinîne.

Roja rêzgirtin ji egîdên leheng ên Kurdistanê ye, yên ku Kurdistan li ser pêyên wê ragirtine û çepera xebatê bi avedanî hêştine. Xevna neyar û dujminên gelê Kurdistanê bona ji holêrakirina navê Kurd û Kurdistanê betal kirine.

Îro cejna destkevtên Pêşmergeyên Kurdistanê ye.

Hevrêyên hêja!

Pêşmergeyên qehreman ên Kurdistanê!

Di serdemê zêrîn ê Komara Kurdistanê û piştî damezrandina Hêza Neteweyî a Kurdistanê, erkê wê hêzê parêzvanî ji Komara Kurdistanê bû. Kurdan ji berê ve navê pîroz yê Pêşmerge ji bo mirovên netirs û cangorî bikar birine. Ji wê roja ku navê Pêşmerge di wêjeya şoreşgerane a gelê me de, bû kultur, nasname, sembola xweragirî, berevanî û cangorîtiyê, Pêşmerge bû baskê bihêz yê gel.

Yekemîn xebata çekdarane a hêza gel, destbiserdegirtina axirîn nîşaneya hikûmeta zordar a Paşayetî, anku şarewaniya Mehabadê ye, her li wê êrîşê de bû ku yekemîn şehîd pêşkêşê bargeha xelkê Kurdistanê hate kirin. Gava han, gavek giring di bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de bû. Wan da selimandin ku vîn û îradeya bihêz û rêxistî a wan dikare desthilata sepandî û zalim jinav bibe û parêzvaniyê ji maf û azadiyên xelkê Kurdistanê bike.

Ji wê demê heya niha, zêdetirî şêst sal ji xebata behreq û berdewam a hêza Pêşmergeyên Kurdistanê bi rêberiya PDK Îranê, derbas dibe. Temenekî dirêj û xwedî destkevtên mezin e.

Hêza Pêşmerge li Komara Kurdistanê de, parêzvanê wê Komarê bû û di pêxema armancên Komarê de cangorîtî kirin. Hêza Pêşmerge Desthilata Mihemedriza Şah anîbû lerizînê. Li şoreşa gelên Îranê de axirîn şûnwarê rejîma Şah jinav birin û ji bo parêzgarîkirin ji destkevtên xelkê Kurdistanê, li hember rejîma kevneperest a Melayan sekinîn û caş û pasdar bi çokda anîn. Xebat û cangorîtî kirin, lê çepera xebatê bicih nehêlan.

Ji bo rêzgirtin ji xebat û cangorîtiya hêza Pêşmergeyên Kurdistanê, Komîteya Navendî a PDK Îranê di pilînoma duyem a piştî kongireya şeşem, biryar da ku roja 26’ê Sermawezê weke roja Pêşmerge were binavkirin û li 26’ê Sermaweza sala 1363’ê Rojî, yekemîn cejna Pêşmerge bi awayekî fermî hate lidarxistin.

Ji demê ve, hemû salekê xelkê Kurdistanê û PDK Îranê di vê rojê de, rêz û pêzanînê ji hewl û tekoşîna egîdên xwe ên xebatkar digirin û li hember fîdakarî, xweragirî û cangorîtiya wan bi emegdariyê ve serê xwe diçemînin.

Îro di demekê de rêz ji xebata Pêşmerge tê girtin ku destkevtên wan ji hemû demekê zêdetir û berçavrtir in. Pêşmergeyên Kurdistanê li doma xebata bêrawestan a xwe de, bala bîr û raya giştî a cîhanê, kom û civatên mirovdost û hetanî beşeke berbiçav ji hikûmetên demokrat ên cîhanê bo maf û daxwaziyên xelkê Kurdistanê rakişandine. Xebata tevlî fîdakarî a Pêşmerge, dujminên gelê Kurd ji vê çendê têgihandin ku gelê Kurd bi serkut û tepeserkirinê teslîm nabe û egîdên wî gelî hemû demekê amade ne ku parêzvaniyê ji hebûn û mafên xwe bikin.

Rohn û eşkere ye ku em nikarin di rê û resmeke wiha de, xebat û tekoşîna Pêşmerge binirxînin, lê em dê rêz û hurmetê jê bigirin, çunku hewl û xebata wan destkevt û encamên girîing ji bo gelê Kurd lişûn de bûne. Bila ew şanaziyê bikin ku partiya wan mezintirîn û bibawertirîn, xwedî rêxistinek tekûz, dîplomasî û pêwendiyeke berfireh û ragihandineke bihêz û nûjen e ku evana hemû di encama xebata wan de bidest hatine.

Hevalên hêja!

Dema ku em ji dujminê sereke yê hêza Pêşmerge anku Komara Îslamî ya Îranê dinihêrin, bi rohnî ji me re eyan dibe ku ew rejîme niha zêdetir ji hemû demeke din lawaz û bêhêztir û ketiye ber zext, gazin û lomeyên cîhana nûjen.

Rejîma Komara Îslamî bi hewlên xwe derheq terorîzma navnedewletî, maytêkirin û çêkirina arîşeyan di kar û barên welatên cîran, binpêkirina mafê mirovan, kiryarên dijî mirovî û fîdakirina berjewendiyên gelên Îranê, hewlê bona bidestveanîna çekên Etomî dide. Eva di demekê de ye ku ew rejîme ji hemû demekê zêdetir di bin zext û givaşa navneteweyî de ye.

Em dizanin ku Komara Îslamî bi pawankirina desthilatê, bi meşandina serkut, tepeserkirin û gefxwerin li hember her bizaveke azadîxwazane kariye ku hiloşîna xwe paşde bixe, lê ev çende nikare li hemebr îradeya gelên Îranê de dom bike û direng yan zû mehkûm e bi jinavçûnê.

Pêşeroja xebata hêza Pêşmergeyên Kurdistanê ji bo azadiyê rohn û eşkeretir ji hemû demekê ye.

Bihiloşe rejîma kevneperest a Komara Îslamî ya Îranê!

Bijî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, avakerê Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê!
Silav li Pêşmerge, baskê bihêz yê gel!
Serkeve bizava neteweyî – demokratîk a gelê Kurd bi rêberiya PDK Îranê
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê
Komîsyona Siyasî – Nizamî
26.09.1386
17.12.2007

## Bûş: Rejîma Îranê Herweha Xeternak E




Serokkomarê Amerîkayê ragihand ku rejîma Îranê herwisa xeternak e û ger destê wê bi teknolojiyê meyandina Uraniyomê bigihîje, dê xeternaktir jî bibe.

Wî got divêt Îran rastiyên derheq bernameyên navkî yên xwe eşkere bike. Em bawer in ku Îran xwedî bernameya silahên Hesteyî ye û divêt bi civaka cîhanî re bêje ku çima li dû wê bernameyê de ye.

Herweha got: Rejîma Tehranê divêt bersiva Ajansa Vejena etomî jî bide ku bo çi bernameyên navkî yên xwe ji vê Nawenda ser bi Rêxistina NY veşartiye.

# Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê Bû Endamê Rêxistina "Geneva Call"



Roja 04.12.2007'an, PDK Îranê piştî wajokirina rêkevtinnameya "Geneva Call"ê, weke endam di vê rêxistinê de hate wergirtin.

Di vê derheqê de roja 04.12.2007'an, şandek ji PDK Îranê bi serokatiya birêz **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî, li Jinevê tevî berpirsê "Geneva Call"ê hevdîtin pêk anî û di rê û resmekê de belgeya endambûna PDK Îranê di rêxistina han de wajo kir.

Li gor peymannameya han PDK Îranê xwe ji veguhastin û çandina mayînên dijî mirov diparêze û saziya "Geneva Call" jî divêt derheq pirsa han hevkariyê tevî PDK Îranê bike.

Rêkevtiname demjimêr 2:30'ê piştî nîvro, li hola Alaboma di navbera şanda PDK Îranê û berpirsên Kantona Jenev û berpirsên saziya han de hate îmzekirin.

Hêjayî gotinê ye ku hola Alabama yek ji holên herî bi nav û deng a bajarê Jinevê ye ku tê de civînên aştiya piştî şerên navxweyî ên Amerîkayê birêve çûne. Her wiha yekemîn peymana navneteweyî a mafê mirovan jî piştî şerê duyem ê cîhanî di vê holê de hatiye wajo kirin.

Peymannameya han ji aliyê 34 saziyên nedewletî hatiye îmzekirin û PDK Îranê jî 35'emîn sazî ye ku vê rêkevtinnameyê wajo dike.

Di peymannemeyê de ku bi peymannameya Otava hatiye nasîn û di sala 1996'an, li Kanadayê pêk hatiye, 156 welatên cîhanê rêkevtinnameya mifahwernegirtin ji mayînên dijî mirov wajo kirine. Lê heya niha jî rejîma Komara Îslamî ya Îranê peymannmeya han îmze nekiriye.

Hêjayî gotinê ye ku Rêxistina "Geneva Call", saziyek nedewletî ye û di bin çavdêrî û piştevaniya Neteweyên Yekbûyî de dixebite û navenda wê li Jinevê ye.

Saziya han heyamê 5 salan e ku tevî PDK Îranê pêwendî heye.

# Peyama Sekreterê Giştî Yê Rêxistina "UNPO" Yê, Ji Bo Birêz Mistefa Hicrî

Piştî îmzakirina Peymannameya **"Geneva Call"**ê ji aliyê PDK Îranê û endambûna PDK Îranê di saziya han de, Sekreterê Giştî yê rêxistina "UNPO"yê, peyameke pîrozbahî ji bo birêz **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê şand, eva jêrîn jî deqa peyamê ye:

Birêz Mistefa Hicrî

Rûmet û serfiraziyeke mezin bi min hate bexşîn ku bi nûneratiya rêxistina Gel û Netewên bê nûner (UNPO)yê, bi hinceta îmzakirina peymannameya qedexekirina bikaranîna mayînên dijî kesan, ji aliyê Partiya Demokrat, pîrozbahiyî û keyfxweşiya xwe pêşkêşî cenabê te yê birêz bikim.

Herwek piraniya endamên Rêxistina (UNPO)yê, tevî tirsa mayînên çandî ber bi rû ne, UNPO bi tundî piştevaniya xwe ji



kampayna qedexekirinê dike û bi eşkere bi ji nav birina ew cihwarên mayînên dijî kesan di nava civakê de xebatê dike. Lewra dema ku min ev nûçeya bihîst, ez gellek pê keyfxweş bûm û çavnihêrê bicîgihandina soz û peymanên we ên derheq vê pirsê di pêşerojê de me.

Tevî sipas û pêzanînên xwe

**Mornêv Basdaçîn**
**Sekreterê Giştî yê UNPO'yê**

# Birêveçûna Şevbêreka Heyran, Lavik Û Miqamên Kurdî Bi Hinceta Pîrozkirina 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyên Kurdistanê

Di şevbêrkek payîzî de, evîndarên xebat, mafxwazên demokrat, xebatkarên xweragir ên Kurdistanê, Pêşmergeyên hunermend ên rêya tekoşînê berbi pêşvaziya 26'ê Sermawezê(16'ê Çileya Pêşîn), Roja Pêşmergeyên Kurdistanê çûn.

Roja pêncşem, 13.12.2007'an, rê û resma pêşwazîkirin ji 26'ê Sermawezê, di bin navê "Şevbêrka Miqam, Lavik û Heyranên Kurdî", bi amadebûna beşek ji endamên Deftera Siyasî, Komîteya Navendî, Kadro û Pêşmerge û malbatên wan ên birûmet , di yek ji binkeyên Deftera Siyasî de hate lidarxistin.

Rê û resm bi xwendina pexşanek di bin navê "Emin Demokrat im"(Ez Demokrat im), ji aliyê **Çiya Hicrî** ve, dest pêbû.

Şevbêrk bi gotina Lavik, Miqam û Heyranan ji aliyê hunermendên dengxweş, **Şêrelî Temûyî**, **Hesen Mehmûdî** û **Qazî Resûlzade**, **Cemşîd Pîrî, Hîwa Mihemedî, Xolam Fatihî, Firêdûn Ezîmî, Piştîvan Kakil, Ziyab Sadiqî**, dom kir

.Dûre girûpa davetê Agirî ku ji komek keçên nûciwan pêkhatibû, bi nimayîşkirina çend curên govendê re û resm xemilandin û di cewek tejî ji xweşî û şadî de rê û resim bi dawî hat.









# Daxuyaniya Deftera Siyasî A PDK Îranê Derheq Azadkirina Terorîst Kazim Darabî

Serencam piştî heyamekê li ser belawbûna deng û basên li ser azadkirina **Kazim Darabî**, yek ji tawanbarên terora Mîkonosê li bajarê Berlîna Almaniyayê, roja 19’ê Sermaweza 1386’ê (10’ê Desambera 2007’an) navhatî ji aliyê dewleta Almaniyayê ve serbest hate berdan û ber bi Tehranê ve hate şandin û ji aliyê rayedarên Komara Îslamî ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Her çend ku Kazim Darabî bi rûyekî bi wê yasayê hate azadkirin ku pê hatibû girtin, lê kiryara terorîstî a naskirî bi Mîkonosê, ewqas mirar û rola Darabî jî li wê pilana terorîstî de hinde eşkere bû ku rengê wê yekê nade ew ji avansa yasayî bimifah be anku piştî qetandina du ji sê ya mideha zîndaniya xwe radestî welatê wî bihê kirin, bona wê ku midehê mayîna zîndana xwe li Îranê de biqetîne.

Diyare hikmê dadgeha naskirî a Mîkonosê cuda ji encamderên wê kiryara terorîstî, rêberên payebilind yên Komara Îslamî a Îranê jî weke biryarderên vê terorê bi raya giştî a cîhanê da nasandin û ew mehkûm kirin. Lewra vegerandina Kazim Darabî bo hembêza rêberên terorîstperwer û afirînerên terora Mîkonosê ne tenê nabe sedema wê ku Darabî heyamê mayî yê hukmê xwe li girtîgehên Îranê de biqetîne, belku herwek hate dîtin ji aliyê rejîmê ve bi germî hate pêşwazîkirin û helqe gul xistine sukra wî. Bê guman paye û pileyên bilindtir, îmkanat û îmtiyazên taybetî jî dê jêre bihên diyarîkirin.

Ne sirûştî xuya dike ku rojavayî ji aliyekê banga dijî terorîzmê diqîrînin û li her kun û kunceke vê cîhanê de li dû dewsa terorîstan digerin, ji aliyê din jî terorîstekî naskirî û mehkûmkirî yê naskirîtirîn rejîma piştevanê terorîzmê ku li destê wan de ye, serbest berdidin, ew newekhevî û dijberî çawa tê pasawdan, carê ne ron e!?

Ya ku di vê derheqê de balkêş e, eva ye ku roja azadkirina Kazim Darabî, Roja Cîhanî a Mafê Mirov bû û ger bê nirxandin û heta bi helkewt jî bibe, eva henek û rişekirin bi mafê mirov û roja cîhanî ya mafên mirovan e.

Rojekê ku cîhan tê de rêz ji mafên mirovan digire û li gellek welatan de rê û resmên taybetî jêre tê girtin û pûte û girîngiyek zaf jêre tê danîn.

Eşkere ye ku azadkirina Kazim Darabî ne ji girîngî û dîrokîbûna hikmê dadgeha Berlînê û biwêrî û serbixwebûna Qazî(Dadvan) yên wê dadgehê kêm dike û ne jî şermezarî û riswakirina rêberên Komara Îslamî a Îranê û biryarderên terora Mîkonosê kêmreng dike, ji ber ku hikmê vê dadgehê bo heta heta mora riswayî a terorîzma dewletî kutaye eniya pîs û mirar rejîma terorîst û terorîstperwera Komara Îslamî paqij nabe.

Gihîştina Kazim Darabiyê terorîst bi Tehranê û awayê pêşwazîkirina Komara Îslamî ji wî terorîstî, carek din jî terorîstbûna vê rejîmê û rêzgirtina ji terorîstên elimandî û destperwerdeyê xwe eşkere dike û vê rastiyê ji raya giştî a cîhanê re eyan dike ku hembêza vê rejîmê bo terorîstên herî naskirî jî vekirî ye.

Kazim Darabî ne tenê neçar bi bihorandina heyamê mayî yê zîndana xwe li Îranê nahê kirin, belku zirar û ziyanên 15 sal zîndaniya li Almaniyayê jî dê jêre bihê dayîn û pile û payeyên nû dê jêre bihê diyarî kirin û dûr jî nine ku li heyamê mayî yê zîndana xwe ew wekî nûnerê rejîma Komara Îslamî li kom û civînên rejîmê tevî welatên rojavayî bi taybet Almaniyayê de bo henek û tiranekirin bi xebata dijî terorîzm a rojavayiyan de beşdar be.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê tevî sipasiya dubare ji qaziyên dadgeha Berlînê û tekoşîna parêzeran, azadkirina Kazim Darabî bi gavek dilxweşker bo terorîstan û piştevanên terorîzmê dizane û pênexweşbûna xwe di vê derheqê de eyan dike, ji ber ku gavên bi vî awayî tevî xebata dijî terorîzmê hevrik û dijber e.

**PDK Îranê**
**Deftera Siyasî**
**20.09.1386’ê Rojî**
**11.12.2007’ê Zayînî**

# Di Roja Cîhanî A Mafên Mirovan De, Bikujê Rêberên PDK Îranê Hate Berdan



**Kazim Darabî**, yek ji tawanbarên terora li Mîkonosê û qatilê **Dr. Sadiq Şerefkendî** û hevalên wî, roja 10.12.2007’an, di Roja Cîhanî a Mafên Mirovan de ji aliyê dewleta Almaniyayê hate berdan û radestî Komara Îslamî a Îranê hate kirin.

**Darabî û Ebas Rahil**, yek ji rêveberên din ên terora li Mîkonosê bi sûça terorkirina 3 kes ji rêberên PDK Îranê û xebatkarekî opozîsyonê **Nûrî Dêhkurdî** ji aliyê Dadgeha Berlînê ve bi cezayê girtîgehê yê heta hetayî hatibûn mehkûmkirin.

Ajansên Nûçeyan ên Almanyayê dan zanîn ku Ebas Rahil terorîstê Lubnanî pêncşemiya borî hate berdan û ji bo Îranê hate şandin.

Li gorî qanûnên Almaniyayê ew tawanbarên ku 15 sal ji biryara girtina wan di wî welatî qediyabe, bi wî mercî ku dema din a cezayê xwe li girtîxaneya welatê xwe de biqedînin, radestî welatê xwe tên kirin.

Lê PDK Îranê û malbatên şehîdên Mîkonosê û çalakên mafê mirovan li ser vê baweriyê ne ku ji ber vê çendê ku Kazim Darabî û Ebas Rahil bi fermana rêberên Komara Îslamî terora li Mîkonosê, ji aliyê vê rejîmê ve ne tenê nabe bihên bendkirin, belkî dê werin xelatkirin jî.

Hêjayî gotinê ye ku li gor biryara Dadgeha Berlînê, ev yasaya dewleta Almaniya, Kazim Darabî û Ebas Rahil bi xwe nagire û berdana berwext a wan du terorîstane vê şik û gumanê xurt dike ku di vê derbarê de di navbera Almaniyayê û rejîma komara Îslamî a Îranê de lihevkirin çê bûye.

# Koma Navnetewî A Parastina Mafê Kêmaniyan: Tirkiyê Mafê Kêmnetewa Binpê Dike

Koma Navnetewî a Parastina Mafê Eqeliyetan, navenda wê li paytextê Îngilîstanê, li Londonê ye. Bi rojnamevan, hiqûqnas û kesên nasdar li ser pirsa kêmnetewan kûr dibe, li ser mafê wan zaniyariyê berhev dike û li ser rewşa wan raporan amade dike.

Komê berî niha li ser Tirkiyê raporek di bin sernivîsa "Gerek ji bo wekheviyê: Kênmeteweyên li Tirkiyê" belav kir. Di raporê de tê qalkirin ku, zimanê eqeliyetan di jiyana polîtîk û xizmetên fermî de ji ber qedexê, nikare bê bikaranîn. Di kitêbên dibistanan de li ser wan zaniyariyên weke berê, yên qalip girtî heye.

Mafê kêmnetewan li derveyî peymana Lozanê hate hiştin. Bi zimanê eqeliyetan, di dibistanan de û di medya de bikaranîn, qedexe ye û ew nikarin mafê xwe yê olî baş bikarbînin. Polîtîkaya ji holêrakirina ziman, çand û olê tê bikaranîn. Ji bo perwerde û kirina polîtîkayê tenê ji tirkî re tehemul heye.

Zimanê kêmnetewan di jiyana polîtîk û xizmeta fermî de nikare bê karanîn, qedexe ye. Kitêbên perwerdê li ser kêmnetewan zaniyariyên nerast belav dikin. Li dijî vê şaşiyê rêyek tune ye ku mirov pirsê bibe dadgehê.

Di hilbijartinan da baraja ji % 10 heye. Bi vê yekê rê li ber kêmnetewan tê girtin ku ew nikarîbin cihê xwe ji meclîsê de bigirin.

**1934'an û virve pêşketinên çêbûne**

Di sala 1934'an de li aliyê Turkiyayê êrîş birin ser cihûyan. Di 1949'an de navên gundan bi qanûnekê tê guhertin û dibin bi tirkî. Di 1955'an de li Stenbolê êrîşê dibin ser kesên nemisilman. Di 1982'an de mafê bingehîn yê mirovan hate sînorkirin û bi qanûna nû perwerdeya olî hate danîn. 1991 Parlamentera kurd Leyla Zana di Parlamentoyê de bi kurdî diaxife. Paşê ew û sê Parlementerên din têne girtin û bi 15 sal hepsê hate cezekirin. Di 1992'an de 20 hezar leşkerê tirk li hemberî PKK'ê operasyonê dike û ew derbasî herêma kurda dibin ku, lik wir ewlekarî heye. Di 1994'an de DEP tê girtin.

Di 2003an de meclîsê hişkiya li hemberî zimanê kurdî nerm kir. Lê mirov nikare navên kurdî li zarokên xwe bike. Dadgeha Qanûna Bingehîn, Partiya HADEPê da girtin. Di 2007'an de Serleşkeriya Giştî a Tirkiyê bi beyana xwe anî zimên ku, kesên li dijî dîtina "kêf û serbilindî ji wî re ku bêje, ez tirk im" be, ew neyarên Komara Tirkiyê ne û dê herdem neyar bêne dîtin. 2007 Şaredarê Surê Abdullah Demirbaş ji ber sedema xizmeta xwe a pirzimanî di belediyê de, ji kar hate dûrxistin û meclîs hate fesxkirin.

Zarathustra News

# Qezafî: Dewletbûn Mafê Gelê Kurd E



Serok Komarê Lîbyayê, Muemmer Qezafî ku ji bo hevdîtinên fermî çûye Fransayê, li wir bi nûnerê hikûmeta herêma Kurdistanê li Almanyayê, **Dilşad Barzanî** û şandeyek ji Kurdistana azad re rûnişt.

Qezafî di hevdîtinê de careka din piştgiriya xwe bi gelê kurd re diyar kir û got; **Li ser meseleya piştgiriya min a ji bo avabûna dewleteke kurd, gelek rexne li min tên girtin, heta ji min re dibêjin tu ji kurdan zêdetir daxwaza dewleta kurdî dikî, tu daxwaza dewleta kurd dikî lê partiyên kurdistanî, daxwaza federaliyê dikin.**

Serokê Lîbyayê bi berdewamî got; **Qenaeta min bi edaleta kurd heye lewma hertim û dema şoreşa Lîbyayê heta îro helwesta min neguheriye li hember kurd û gelê Kurdistanê. Min her piştgiriya we kiri ye**.

Qezafî dewletên rexne lê digrin jî binav kir û got; **Tirkiye, Suriye û dewletên din bi dijwarî rexne ji me li ser helwesta me ya li hember kurdan girtine, lê min gotiye û dibêjim gelê kurd ku li ser axa xwe dijî, wek gelê din mafê diyarîkirina Çarenivîsa xwe heye. Berevajiya xelkê ku tirsa wan ji avabûna dewleteke kurd heye û wek xeter bi nav dikin, bi raya min avabûna dewleta kurd qet ne xeter e û mafê gelê kurd e çimkî li ser erd û ava bav û bapîrên xwe dijîn, axa kesî jî dagîr nekirine.**

Weke tê zanîn Qezafî di salên 1970-1980yî de jî eşkere piştgirî dida tevgera azadîxwaz ya kurd û li her derê jî digot; mafê kurda jî heye ku dewleta xwe ava bikin

# Şiroveya Peyvên Siyasî



Berhevkar: Omîd Esxeran

## Konfederasiyon (Confederation)

Konfederasiyon ji peyva Latînî a (Confederation)'ê ku tê wateya kom û yekîtî, hatiye wergirtin. Sîstema han bi piştgirêdan bi peymanek navnedewletî tê holê ku di navbera hinek dewletan ji bo bidestveanîna hin armancên diyarîkirî tê girêdan. Li gor peymana han, desteyek hevbeş ji bo bidestveanîna armancên diyarîkirî tê pêkanîn. Dewletên endam di konfederaliyê de, serweriya derve û navxweyî a xwe diparêzin, lê di asteke diyarîkirî de, dev ji hin azadî û desthilatên xwe ji bo desteya hevbeş ber didin. Dewletên endam daxwaz ji desteya han dikin ku hewlê bona bidestveanîna armancên ku di peymana konfederaliyê de li ser wan hevhatine, bide. Ji armancên han em dikarin qala parastina serbixweyiya dewletên endam, qedexekirina şer û berevanîkirin ji berjewendiyên siyasî û aborî bikin. Desteya konfederal weke dewletek nahê hesibandin ku li serweyî dewletên endam be, belku erkê wê tenê darêtina siyaseteke giştî ye di çarçoveya wan desthilatên ku jêre hatine diyarîkirin. Deseteya han biryarên xwe bi hevdengî dide û divêt biryarên han ji aliyê welatên endam ve werin cîbicîkirin.

Em dikarin armancên yekîtiya konfederal di van çend xalên jêrîn de diyarî bikin:

1. Dewletên endam serbixweyiya navxweyî a xwe diparêzin, lê di pêwendiyên derve de girêdayî siyasetek giştî a konfederal in.
2. Di asta navneteweyî de, konfederalî û desteyên hevbeş xwediyê tu serbixweyiyekê ninin û nikarin desthilatek rasterast bi ser hevwelatiyên welatên endam de bimeşînin.
3. Her yek ji welatên endam mafê vê çendê hene ku li gor pirensîp û pîvanên giştî ên şer, dest bavêjin şer ku li dema rûdana şerekî wiha de, şerê han weke şerek navxweyî nahê zanîn, belku bi şerek navneteweyî tê hesibandin.
4. Li gor yasaya giştî a navneteweyî, her dewleteke endam di konfederaliyê de, li hember kiryarên çewt ên hevwelatiyên xwe berpirsiyariyek navdewletî dikeve ser milê wan.

Dewletên Yekgirtî ên Amerîkayê, di heyama salên 1778 – 1787'an de, bi awayeke konfedrasiyon birêve diçû, welatê Swîsê ku ji 22 kanton(canton)an pêkhatiye binav konfederalî ye, lê bi awayê federalî birêve diçe, welatê Almaniya û Holendayê jî berê bi awayek konfederalî birêve diçûn.

Li Şibata sala 1958'an de jî Yekîtiyek Konfederalî a bi navê " Yekîtiya Ereb a Haşimî" di navbera Îraq û Urdinê de hate pêkanîn ku gellek dom nekir.

Hin caran jî peyva han ji bo yekîtî û rêxistinên civakî, siyasî û aborî tê bikaranîn.

# Rapora Hevdîtin Û Kar Û Çalakiyên Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Li Welatê Swêdê

Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, birêz **Mistefa Hicrî**, bi awayekî fermî ji aliyê rêxistina **“Geneva Call-Bangeşeya Genev”**ê bo “Genev”ê hatibû gazîkirin.

Di vê sefera siyasî de ku li roja 03.12.2007’an heya 11.12.2007’an dom kir, birêz Mistefa Hicrî hevdîtin tevî navend û saziyên cur bi cur ên civata Navneteweyî û Swîsî pêk anî, ku emê di vê raporê de bi kurtî bas ji wan hevdîtinan bikin.

Roja 03.12.2007’an birêz Mistefa Hicrî di yek ji holên rêxistina Neteweyên Yekbûyî de li “Genev”ê peyamnameya qedexekirina mayînên dijî kesan îmza kir û PDK Îranê, bû endamê rêxistina “Geneva Call”ê

Roja 05.12.2007’an, Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, tevî **Xosrow Ebdulahî**, berpirsê beşa pêwendiyên PDK Îranê li derveyî welat û **Ako Elyasî**, nûnerê PDk Îranê li welatê Swîsê, hevdîtin tevî berpirsê Komîsyona Mafê Mirovan a ser bi Neteweyên Yekbûyî re pêk anî.

Roja 05.12.2007’an, birêz Mistefa Hicrî, tevî berpirsên Komîsariyaya Bilind a penaberên ser bi rêxistina Neteweyên Yekbûyî di navenda sereke a vê Saziyê di



“Genev”ê de hevdîtin pêk anî.

Roja 06.12.2007’an, birêz Mistefa Hicrî li welatê Swîsê, seredana binkeya sereke a Partiya Sosyal Demokrat a wî welatî kir ku ji aliyê birêzan **Hans Yorg Fêhr**, Sekreterê Partiya han û **Pêtêr Hûg**, berpirsê Pêwendiyên Nawneteweyî ê Partiya Sosyal-Demokrat ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Herwiha roja 07.12.2007’an, birêz **Hûbêrt Tisûkêndêrn**, Sekreterê Giştî yê Partiya Kesk a Swîsê, di cihê kar û xebata xwe de, pêşwazî ji birêz Mistefa Hicrî kir.

Birêz Mistefa Hicrî, roja 10.12.2007’an, seredana Wezareta kar û barên derve yên welatê Swîsê kir ku ji aliyê karbidestên Wezareta han ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Roja sêşem, 11.12.2007’an, **Kirîstof, Pilate**, rojnamevan di beşa Rojhilata Navîn de di rojnameya kevin û pirtîraj a **Noyezurîzêr Tisotang** de li welatê Siwîsê, hevpeyvîneke rojnamevanî tevî birêz Mistefa Hicrî derheq dîroka xebata PDK Îranê, siyaset û rayên PDk Îranê li pêwendî tevî pirsên cur bi cur ên Kurdistan, Îran û cîhanê pêk anî.

Hêjayê gotinê ye ku birêz Mistefa Hicrî, di hevdîtin û seredanên xwe tevî navend û rêxistinên cur bi cur ên civata navneteweyî û swîsî de, li ser mijarê weke binpêkirina mafê mirovan li Îranê û Kurdistanê, zext û givaşên rejima Komara Îslamî a Îranê li ser xelkê sivîl, azadîxwaz, xwendekar, jinan, ciwanan û giştçîn û qatên Îranê, bi taybetî xelkê Kurdistanê rewşa nebaş a koçberên Kurdên Îranê ên akinciyê welatê Turkiye, Îraq û Kampa Elkeramê endambûna PDK Îranê di “Geneva Call”ê. Berfirehtirkirina têkilî û pêwendiyan di navbera PDK Îranê û sazî û partiyên mirovhez û azadîxwaz, destavêtina rejîma Komara Îslamî a Îranê di kar û barên welatên cînar, weke Îraq, Felestîn, Lubnan û ... axivî û guhertina bîr û rayan kirin.

# Rê Û Resma Dawîhatina Çaremîn Festîvala Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê

Beşa amozişiya Hêza Parêzgarî îsal jî herwekî salên berê bi hevkarî û piştevaniya komîsyona Siyasî-nizamî, çaremîn festîvala salaneya xwe di bin dirûşma **Pêşmerge, meşxeldarê hizr û kirdarê serdem e**, lidarxist û 4’mîn moma temenê wê, bi armanca pêgihandin û perwerdekirina xebatkarên biemeg yên Partiyê teyisand. Ew festîvale taybet bû bi 26’ sermawezê, roja pêşmergên Kurdistanê û bilindragirtina vê roja mezin. Festval li du beşên sereke yên Siyasî, Hunerî û werzişî pêkhatibû ku roja înê 2’ê Sermaweza 1386’an de destpê kir li 10’ê Sermaweza 1386’anbidavî hat.

Hêjayî gotinê ye ku rêûresma dawîhatina festîvala 4’mîn ya hêza Parêzgariyê roja 10.12.2007’an, li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê, bi beşdariya endamên Deftera Siyasî û Komîteya nawendî, hejmarek zaf ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê, bi xwendina sirûda neteweyî a “Ey Reqîb” û deqîqeyek bêdengî ji bo canê paqij ê şehîdên Kurdistanê dest pêkir.

Piştre peyama siyasî a Festîvalê ji aliyê yek ji kadroyên hêza Parêzgarî a PDK Îranê hate pêşkêşkirin.

Piştre rapora beşa fikrî- siyasî a festîvalê hate pêşkêş kirin. Dûre pexşanek bi navê





pêşmerge, ji aliyê ke Pêşewa Rezayî ve pêşkêşî beşdaran hat kirinê. Herweha her du hunermendên pêşmerge, Xolam Fatihî û Azad Mistefapûr bi dengê xweş û zelal yên xwe coşek mezin dan rêûresmê.

Di beşa din a festîvalê de, ew Kadro û Pêşmergên ku di kêberkêyên festîvalê de serkevtin bi dest xistibûn, hatine xelatkirin.

Hêjayî gotinê ye ku rê û resm di nava govend û xweşiya beşdaran de bidawî hat.



# Beşdariya Berçav A Jinan Di Partiya Civaka Demokratîk De

**Çinûr Qadirî**

Doza jinan di cîhana nûjen û pêşkevtî a îro de weke dozeke navnetewî û pirseke girîng a civakî – siyasî tê hesibandin. Asta zêde a beşdariya jinan di warên civakî, siyasî, çandî, aborî û... di civakê de nîşaneya pêşkevtina wê civakê ye. Çimku civaka han ji hêz û pitensiyêla niviya civakê mifah wergirtiye û derheq vê pirsê, bi awayekê paşverûyane nafikire. Ji ber ku bîrkirinên han dibe sedema dabeşbûna civakê bi du desteyên cuda û dijî hev. Lê di civakên pêşkevtî de xelk bi başî dizanîn ku heke jin di kar û barên cur bi cur ên vê civakê de bi awayekî çalak beşdariyê nekin, ew civak dê tûşî arîşeyan bibe û civaka han ne civakeke nûjen û kemilî ye. Em jî weke netewa Kurd divêt bihagiraniyê bidin vê pirsê û ger em bixwazin ber bi nûjenbûn û pêşkevtinê, gavan biavêjin, divêt ku di eniya wekhevîxwazî û wekheviya jin û mêran di civakê de cih bigirin. Rewşa jinên kurd li her parçeyêkê Kurdistanê bi awayekê ye. Piştî serhildana sala 1991'an, li Kurdistana Îraqê û azadbûna vê beşa Kurdistanê û bidestvehatina beşkeke zaf ji maf û azadiyên demokratîk ji bo netewa Kurd, bi tewahî rewşeke cuda ji her 3 perçeyên din ên Kurdistanê, li wir pêk hat. Di vê navberê de rewşa jinên Kurdistana Îraqê jî hewcehî bi şirovekirina zêdetir heye. Lê em li vir naçin ser vê mijarê.

Bindestbûna netewa Kurd li beşên din ên Kurdistanê anku Kurdistana Turkiye, Sûriyê û Îranê, bi vê wateyê nine ku civaka kurdî yan partî û saziyên siyasî û sivîl ên Kurd di wan beşên Kurdistanê de, girîngiyê bi rol û beşdariya jinên Kurd di pêvajoya xebata siyasî, azadîxwazî û çalakiyên sivîl û.. di civakê de nadin.




Em bi başî dizanin ku jin di her perçeyeke Kurdistanê de li gor rewşa siyasî, aborî û civakî a civaka Kurdî, xwediyê roleke jar û kêmreng e û gellek bihagiranî bi rola jinên Kurd di pêvajoya pêşveçûna civakê nehatiye dan. Di vê navberê de rola partî û rêxistinên siyasî, gellek berçav û çarenivîssaz e. Divêt partiyên Kurdî ji bo beşdarîkirina jinan di warê jiyana siyasî û civakî û...de pêşeng bin.

Girîng eva ye ku partî û saziyên Kurdî heya çi qasî bi awayekî piratîkî ji bo vê pirsê hewlê didin û rê ji bo beşdariya jinan di meydana siyasetê de xweş dikin, vedikin.

Emê li vir îşare bi bername û pirensîpên yek ji partiyên Kurdistana Turkiyê bikin ku di rastî de pêşengê partî û saziyên Kurdistana Turkiyê ye ji bo beşdarî û çalakkirina jinan di nava refên xwe de.

Partiya Civaka Demokratîk (DTP), yek ji partiyên Kurdî li Kurdistana Bakûr e ku bi awayekî legal li Turkiyê tekoşînê dike. Partiya Civaka Demokratîk bi armanca çareserkirina pirsa Kurd li Kurdistana Turkiyê û dabînkirina maf û azadiyên netewa Kurd û ji bo demokratîkkirina Turkiyê xebatê dike.

Pêka bername û pirograma hundirîn a vê partiyê, divêt Serokên vê partiyê du kes bin(hevserok). Yek ji wan mêr û yek ji wan jî jin be. Biryara han weke pirensîpek di nava bername û pirograma hundirîn a vê partiyê de hatiye pejirandin û tê birêvebirin.

Em dikarin bibêjin ku pirensîpa han, gavek demokratîk û nûjen e ku xizmetek mezin derheq çareserbûna doza jinên kurdistana Turkiyê dike. Herwiha xizmetek e ji bo gehîştina netewa Kurd bi azadî û demokrasiyê.

Partiya Civaka Demokratîk a Turkiyê ku îsal jî di hilbijrtinên Perlemana Turkiyê de beşdarî kir, karî 23 nûnerên kurd bişîne Parlemanê ku 8 kes ji wan nûneran jin bûn.

Herwiha heyamekê beriya niha Partiya Civaka Demokratîk li bajarê Amedê, duyemîn Kongreya Awarte a xwe pêk anî. Di wê kongirê de rola ektîv û beşdariya eleng a jinan, bala mirovan ber bi aliyê xwe ve dikişand.

Di nava 878 nûnerên kongirê de nîvî jin bûn. Herwiha li nava 80 kes ji nûnerên kongirê ku ji bo Civata Birêveberiya Partiya han hilbijartin, hejmareke zaf jin bûn.

Jinên weke **Emîne Ayna, Sebahet Tûncel, Perwîn Boldan, Selma Îrmak, Ayesel Tuglok, Fatma Kurtolan, Sewahîr Bayindir, Gûlşen Kişanak, Mizgîn Birgat, Şîlan Emîroxlû** û... di Şewra hilbijarî a Partiya Civaka Demokratîk de tên xuyakirin.

Di vê kongireyê de Nûredîn Dîmîrtaş bû Serok û xatûna Selma Êrmak, bû Hevseroka wî (seroka duyem).

Hêjayê gotinê ye ku hejmarek zaf ji wan şaredariyên Kurdistana Turkiyê ên ser bi Partiya Civaka Demokratîk ku ji rêya hilbijarinan vê karîne serkevin, jin in.

Di nava kongireya yekem heya duyem a vê partiyê de, Aysel Tuglok, jina xebatkar a Kurd weke Hevseroka Ehmed Turk, hatibû hilbijartin ku piştî hilbijartina Serok û Hevserokên nû ên vê partiyê, her du serokên berê bi germî pîrozbahî ji serokên nû kirin ku ev yeka gavek nûjen û demokratîk e ku divêt gellek kes dersê jê wergirin.

# Peyama Yekîtiya Jinên Demokrat Ên Kurdistana Îranê, Derheq 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergeyên Kurdistanê

Roja 17'ê Çileya Pêşîn a sala 1945'an, binkeya leşkerî a rejîma Paşatiyê li bajarê Mehabadê, ji aliyê xelkê şoreşvan û welatperwer yê vî bajarî hate girtin û çekkirin.

Bi kiryara han nîşan û cihwarên herî dawî ên rejîma Şah, li paytexta Kurdistanê hate komkirin û ala pîroz a Kurdistanê hate hildan, lewra PDK Îranê ji bo rêzgirtin derheq xebat û berxwedana Pêşmergeyên Kurdistanê, roja 17'ê Çileya Pêşîn di sala 1984'an de, weke **Roja Pêşmergêyên Kurdistanê**, diyarî kir. Di wê demê ve heya niha hemû salekê roja han bi rêz û hurmet ve tê pîrozkirin.

Ger mirov şoreşên azadîxwaz ên neteweya Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê di 60 salên borî de mêze bike, derdikeve holê ku hêzên Pêşmergan bingeha berxwedan û sembola berxwedaniya şoreşên han bûye.

Di çanda siyasî û dîroka azadîxwazî a netewa Kurd de, tu peyvek weke peyva pîroz a Pêşmerge cihê xwe di nava dilê xelkê de ne vekiriye û rêz û hezkirinên komên xelkê ber bi aliyê xwe ve nekêşaye.

Pêşmerge kesek e ku herdem tevî vê çendê ku seh bi nebûna mafên netewa xwe dike, gihîştiye vê rastiyê jî ku tenê sehkirina vê yekê bes nine û hewce ye di vê pêxemê de di çepera herî pêş a xebatê de cihê xwe bigire.

Pêşmerge ji bo bidestveanîna mafên berheq ên netewa xwe û berevanîkirin ji nasnameya netewa xwe, amade ye ku jiyana xwe bike goriyê vê rêbazê.

Eva di halekê de ye ku Pêşmergên Kurd û netewa Kurd qet hez li şer nekiriye û hez jî nakin, belku tenê ji bo parastina Kurdistanê û berevanîkirin tevî hêzên dagirker ên neyarên welatê xwe, dest avêtine çekê.

Em di vê rojê de pîrozbahiya xwe ji gişt Pêşmergên dilêr û welatparêz dikin. Herwiha cihê xwe ye ku di roja han de pîrozbahî û destxweşiyê ji wan hemû keç û jinên Kurd bikin ku bi lixwekirina kincên pîroz ên Pêşmergatiyê, dîroka xebata netewa Kurd herdem zindî ragirtine.

Em weke YJDK Îranê li welatê Swêdî, serbarê tewandina serê rêz û hurmetan li hember xebat û cangoriyên Pêşmergên Kurdistanê, bi dil pîrozbahiya xwe ji gişt Pêşmergên Kurdistanê dikin û hêvî dikin ku di pêşerojeke nêzîk de 17'ê Çileya Pêşîn û gişt rojên pîroz ên din di Kurdistana azad û avadan de bê pîrozkirin.

Silav li gişt şehîdên Pêşmerge û malbatên serbilind ên şehîdan

Silav li gişt girtiyên xweragir û malbatên erbilind ên wan

Silav li netewa xebatkar û dilêr a Kurdistanê

Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê li Swêdê

# Roja Cîhanî A Xebat Li Dijî Îdzê Û Rewşa Vê Nexweşiyê Li Îranê

**Sureya Obeyd**, berpirsa Beşa Nifûsa Cîhanî a ser bi Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, di peyamekê de bi hinceta yekê Çileya Pêşîn"Roja Cîhanî a xebat li dijî Îdzê", ragihand: Her rojê 5700 kes li cîhanê bi sedema tûşbûn bi nexweşiya Îdzê jiyana xwe ji dest didin û 6800 kes jî tûşî nexweşiya han dibin.

**Dr. Elîriza Sitayêş**, berpirsê bernameya hevbeş a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî derheq nexweşiya "HIV"yê li Îranê, tevî "Radio Farda"yê ragihand: Lêkolîna herî dawî a derheq nexweşiya Îdzê li Îranê, sal û nîvek beriya niha hate ragihandin. Li gor vê lêkolînê 66 hezar kes di Îranê de tûşî nexweşiya "HIV"yê bûne.

Wezareta Saxlemî a rejîma Komara Îslamî a Îranê di serhejmariyekê de ku di dawiya sala 2006'an de, belavkirin, ragihand ku 14 hezar kes li welatê Îranê tûşî nexweşiya Îdzê bûne û eva jî di halekê de ye ku **Dr. Ehmed Kûşa**, Cîgirê berpirsê saxlemiya zanîngeha Zanistên Nojdariyê a bajarê Tewrêzê eşkere dike ku her niha 100 hezar kes li Îranê tûşî nexweşiya Îdzê bûne.

Pêka rapora Nûçegihanê "ISNA"yê, çend salan piştî peydabûna vîrûsa Îdzê, yekemîn kesê tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê li Îranê ku zarokekî kêm temen bû, hate naskirin. Ev zarok ji rêya lêdana xwîna nepaqij ve tûşî nexweşiya han bibû.

Piştî jêrdeçûna asta hejmara kesên tûşbûyî bi madeyên sirker, hejmar û asta kesên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê jî ber bi jor de çû. Herwiha hejmarek ji karnasên vê nexweşiyê, li



ser vê baweriyê ne ku di van salên borî de hejmareke zaf ji kesên Îdzî li Îranê ji rêya têkiliyên zayendî ve tûşî vê nexweşiyê bûne.

Karbidestên rejîma Komara Îslamî Îranê li destpêka peydabûna vê nexweşiyê li Îranê, bê liberçavgirtina sedemên navxweyî ragihandin ku mifah wergirtin ji xwîna pîs û nepaqij bûye sedema jordeçûn û berfirehbûna nexweşiya Îdzê di Îranê de.

Berfirehbûna îtiyadê li Îranê, bi sedema girîngînedana berpirsên rejîma Komara Îslamî a Îranê bi vê pirsê, bi taybetî li encama siyasetên dijî mirovî ên rejîmê, li wan herêmên ku neteweyên din tê de dijîn, bûye sedema jordeçûna asta kesên tûşbûyî bi nexweşiya "HIV"yê.

Tirsa veguhastina vîrûsa Îdzê ji aliyê kesên tûşbûyî bi madeyên sirker heya astekê ye ku **Dr. Gilave Musteşarî**, karnasa Payebilind a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, derheq kêmkirina asta mifahwergirtin ji madeyên hişber di vê derbarê de dibêje: Tê texmînkirin ku 3 hezar zarokên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê li Îranê ji dayîk bibin.

Pisporên warê nexweşiya "HIV"ê, rola ragihandinê bi giştî û televîzyonê bi taybetî li agahkirina xelkê derheq pêşîgirtin ji tûşbûn bi nexweşiya Îdzê û belavbûn û jordeçûna asta wê, gellek girîng hesibandin. Lê **Dr. Ebas Sedaqet**, berpirsê Îdareya Îdzê a Wezareta Saxlemiya Îranê di hevpeyvînekê de tevî malpera dewletî a "Aftab"ê ragihand ku medya û ragihandinên rejîma Komara Îslamî a Îranê bi giştî û nemaze televîzyonên vê rejîmê, qet girîngiyê nadin vê nexweşiyê û di pirogiramên xwe de gellek bi kêmî bas ji vê nexweşiyê û egerên tûşbûn bi nexweşiya han dikin.

Hewildan ji bo çareserkirin û pêşîgirtin ji berfirehbûna nexweşiya "HIV"ê, erkê gişt dewletên xelkî û berpirs e. Lê pêka hindek nûçeyan, dezgeh û binkeyên ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê li bajarên Kurdistanê, mijûlê birêvebirina pîlanên cur bi cur ji bo tûşkirina ciwanên Kurd bi nexweşiya Îdzê ne. Rejîm di vê pêxemê de jin û malbatên tûşbûyî bi nexweşiya "HIV"ê li bajarê din ên Îranê ber bi bajarên Kurdistanê şandiye ku weke mînakên herî dawî em dikarin îşare bi anîna çend malbatên Îdzî bo bajarê Ciwanroyê bikin.

**Çavkanî:**

**Malpera "Iranpressnews"**

**Radio Farda**

# Ji 5 Kesan, Kesek Xwendin Û Nivîsandinê Nizane

Rêxistina Çand, Perwerdehî û Zanistî ya Neteweyên Yekbûyî (UNESCO) ragihand ku li seranserê dinyayê ji her pênc kesên kemilî, yek kes xwendin û nivîsandinê nizane.

Li gor rapora perwerdehiyê ya salane ya UNESCO'yê digel newekheviya mezin li dinyaye di hejmara zarokên ku diçin dibistanê, bilindbûnek heye, lê xebatên ji bo bilindkirina asta xwendin û nivîsandinê bi têra xwe nehatiye kirin.

Raporê ragihandî ye ku li dinyayê mafê xwendin û nivîsandinê, mafê herî bingehîn e. Di civîna Neteweyên Yekbûyî ya di sala 2000'î de li Dakarê 164 hikumetan biryara perwerdekirina kesên kemilî girtibû bin ewlehiyê, lê ev soz bi cih nehatiye.

Di raporê de hikumetên ku li hemberî mijarê pejinkar tevnegeriyane, têne rexnekirin, di heman demê de diyar kiriye ku jin bi qasî mêran ji xizmetê perwerdehiyê sûdê wernagirin.

Her wiha hate ragihandin yên ku xwendin û nivîsandinê nizanin li 15 welatan dijîn û ji van welatan jî 8 welatên ku serjimariya wan pir e ev in: Bangladeş, Çîn, Brezîlya, Misir, Hindistan, Endonezya, Nijerya û Pakistan.

Dîsa hate gotin ku di sala 1999'an de hejmara zarokên ku diçûn dibistana seretayî, 647 mîlyan bû ev hejmar di sala 2005'an de derketiye 688 mîlyonî.

UNESCO'yê bi taybetî xwest ku hevkêşeya di navbera zarokên keç û kur ên ku diçin dibistana seretayî divê bê sazkirin û got ku ev pirsgirêka hevkêşeyê zêdetir

li welatên Ereb û li Başûr û Rojavayê Asyayê heye. Ji bo welatên Afrîkayê jî hate gotin ku ew bi têra xwe amûrên xwendin û nivîsandinê nikarin bi dest bixin.

# Pêşmergeyekî PDK Îranê, Di Kêbirkêya Hilatinê De Pileya Yekem Bi Dest Xist



Li gor agahiyên Navenda Nûçeyan a PDK Îranê, di pêşbirkêyekê hilatina 10 kîlometrî de ku roja 07.12.2007'an, di parêzgeha Mûsilê a welatê Îraqê de birêve çû, **Rehîm Ehmedpûr**, yek ji pêşmergên werzişvan ê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, karî pileya yekem destve bîne.

Hêjayê gotinê ye ku qirare li meha Şibata 2008'an, maratoneke 42 kîlometrî, li Herêma Kurdistana Îraqê, were birêvebirin û **Rehîm Ehmedpûr** û **Faxir Mewlûdî**, du werzişvanên girûpa werzişî yên Komarê ne ku di heyamê 5 salên borî de bi berdewamî di kêbirkêyên bajar û parêzgehên Kurdistan û Îraqê de beşdarî kirine û çendîn serkevtinên berçav bidestveanîne

# WÊJEYA CÎHANÊ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Wêje, wekî berhemên xurt ên ku bi mebesta derbirîna hest û hizrên ku mirov têr dikin û çêj û têrbûneke şahîk û têrwate didine mirov tê navandin. Ango, wêje çeq û hevsela ber û berhemên ku gihîştine radeyeke berz û payedar e.

Rast e; wêje, wekî derbirîna hest û hizrên mirov tê zanîn û ravekirin. Belê tenê ne derbirîna hest û hizrê; her wisa hunera derbirîna hest û hizrê û vegotina bi bandor û manîdar e jî. Digel vê yekê, her gotin û vegotinên devkî an jî tekst û derbirînên nivîskî her gav nikarin di bergeha ber û berhemên wêjeyî de cihê xwe bibînin.

Nîqaş û guftûgoyên ku der barî wêjeyê de hatine destpêkirin, xwe dispêrin yewnaniya kevnar. Ev nîqaş û dubendiyên ku wêjeyê rave dikin, bi du awayan derdikevin pêş. Yek jê, şîroveya ku wêjeyê di sînorekî deng û asê de diesrîne û wê wekî formeke qalibgirtî nîşan dide ye. Ya din jî, ya ku wêjeyê wekî berhemên resen ku bê sêwirandin, bi azmûn û ceribandinên salan re pêk tîne, nîşan dide ye. Bi kurtayî mirov dikare bibêje ku du nêzîktêdayînên bingehîn ên ku berên tekstên wêjeyê didin ber lêpirsînê hene.

Gelek çeşnên wêjeyê hene.

1. Helbest
2. Pexşan
3. Dram(dilşewatî)
4. Birên vegotinê yên din

Tevgera ku bi şêwaze cihêreng dexma xwe li dîroka wêjeyê dide wekî t4ebgera wêjeyê tê binavkirin. Di dîroka wêjeyê de gelek tevger û livbaziyên mezin pêk hatine.

Gava ku mirov dêhna xwe dide tevgerên pêşketinê, pêşî hemû bi wêjeyê dest pê kirine. Û hemû jî xwe dispêrên ber û berhemên bîrdozên ku bastûra jiyana civakî pêk anîne. Hizr û felsefeya ku bîrdozên civakî pêk anîne, gelek caran xwe li ser huner û wêjeyê jî dane ferzandin. Û ev ferzandin bûye hem bingeha tevger û livbaziyên hunerî hem jî rikn û ripinê ber û berjhemên wêjeyî.

Wêjevan, bi nêrîn û nêzîkahîtêdanên nûjen re gelek guherîn û veguherînên nû pêk tînin û pergala civakê serobin dikin. Wêje, berî nivîsê jî hebû. Belê bi dahênandina nivîsê re hem vegotina nivîskî û hem jî ya devkî pêş ve dibe. Dîroka mirovahiyê ya nêzîk bûye govanê(şahidê) gelek rêbaz û livbaziyên wêjeyê. Hin jê ev in:

1. Romantîzm (coşdarî)
2. Kevnareyî/kevneşopî (klasîzm)
3. Siruştîparêzî (naturalîzm)
4. Şayesîparêzî (parnasîzm)
5. Sembolîzm
6. Mengîwerî (îdealîzm)
7. Rasteqînî (realîzm)
8. Futurîzm
9. Dadaîzm
10. Surrealzîm (gerçeküstücülük)
11. Letrîzm (tîparêzî)
12. Egzistansiyalizm
13. Personalizm (xweperestî)

Em ê di vê nivîsara xwe de li ser çar tevgerên wêjeyê rawestin û bi kurtayî rave bikin.

**1. Kevnareyî/kevneşopî (klasîzm)**

Di dawiya sedsala 17'yan de li Fransayê derketiye holê. Mijar û babeta xwe ji mîtolojiya yewnaniya kevnar wergirtiye. Ji bo vegotinê zimanê zikmakî wekî bingeh dibîne. Bi fersaeta "huner ji bo hunerê" tevdigere. Wêjevanên vê tevgerê, kesantiya xwe vedişêrin. Di berhemên wan de tîpolojoya şexsiyetên kevneşop derdikeve pêş. Ji bo wê, cih û wargeh zêde be girîng e çimkî cih û war guherbar in. Zimanê ku tê bikaranîn, bijarte (zimanê kesên bijarte) ye. Vegotin sade û xwerû ye.

Mirov dikare berhemên Descartes û Molire wekî mînak nîşan bide

**2. Romantîzm (coşdarî)**

Di dawiya qirnê 18"yan û destpêka qirnê 19'yan de li erdzemîna Ewropayê derketiye holê. Bêtir li Ingilîsatan û Almanyayê şax vedaye. Welatê Fransa û Ewropaya Başûr hinekî bi derengî nasdarî vê tevgerê bûne. Ev tevgera wêjeyê, li hemberî wêjeya Klasîk wekî bertekekê(reaksiyonekê) derketiye holê. Romantîzm, li hemberî hemû astengiyên ku azadiya mirov manî dikin, radiweste. Felsefeya xwe jî "rêzana herî baş bêrêzanî ye" wergirtiye. Bi daxwaza derbîrîn û pêkanîna d hest û hizrên mirov ên ku derbasî jiyanê dibin, tevdigere. Serkêşê vê tevgerê yek jê Victor Huga ye.

**3. Siruştîparêzî (naturalîzm)**

Siruştîparêzî, di dawiya qirnê 19'mîn de li Fransayê derketiye holê. Nivîskarên siruştîparêz, li hemberî tiştên camidî/heyberî derdikevin. Di berhemên xwe de dijwariya jiyanê derdixin pêş. Û hemû reşbînî û nakokiyên civakî derdixin pêş. Nemaze jiyana kesên xizan û belengaz, xizanî û belengaziya mirovan deprêş dikin. Bandora civakê ya li ser takekes wekî hêzeke diyarker dibînin. Romana Emile Zola ya bi navê Le Roman expérimental (Romana Ceribîner) a ku di 1880'yî de nivîsiye ye ji bo vê tevgerê mînak e.

**4. Dererastîparêzî (surrealzîm)**

Piştî herdu şerên cîhanê (şerê yekemîn û duyemîn), li erdnîagariya Ewropayê derketiye holê. Wekî tevgereke nê, li hemberî rasteqîniyê, tiştên derîaqil vedibêje û diparêze. Nivîskarên ku vê tevgerê diparêzên, liv û bizavên hişmend û derîhişmendiyê didin ber hev û li gorî xwe piroleyîyeke(mubelexeyeke) dûrîaqil diafirînin. Nivîskarên vê tevgerê yên mîna Andre Breton, Louis Aragon, Benjamen Peret û hwd. gelek berhemên xurt afirandine. Îro di nav nivîskarên dinê ên nivşê nû de gelek nivîskarên vê tevgerê îhane û digihên. Pirên wan jî bi mîzahê(pêkeniyê) têkildar in.

Em ê di rojên pêş de li ser cureyên wêjeyê yên din jî rawestin û bbi kurtayî tevgerên nû li gorî qaîdeyîn wêjeyê rave bikin.

*Kaniya Helbestan*

## MIRIYÊ ZINDÎ

**Xizan Şîlan** -Stockholm

di neynika dilê xwe de
li nav qermîçokên
eniya xwe
pêrgî jana xerîbiyê têm
pira hêviya min
ya li navbera berbangê
û asoyê
hilweþandin
toza bîranînên
lanet bûyî
bi kefa mistan
bi ser min de
daweþandin
mayînên bagêje
di mêjiyê min de
teqandin
nikarim xwe ji pencên
kurtepista zimanê deyûzan
biparêzim dayê
çavsorî
hesûdî
û zikreþiya mirovên çeqel
bîr û baweriyê
li min diqurifînin
jiyanek zindî mirî
li min sîwar kirin
di jiyana talanbûyî
û giyanê xwe de
bû me qulingê koçeber
ji ber awirên þermok
hesta tawanbariyê
û evîndariyê
bêhn li min diçikê
pist li min xûz dibê
di nav êþ
hêrs û tirs
û bêdengiya xwe de
difetisim
wekî ku ez ne ji te
ji zikê janê çêbû bûm
êþan
bi awirên zexelane
ez ji paþ ve
xençer kirim
hevsarê xemgîniyê
xistin stûyê hêviyên min
û þewqa fanosa
pêþeroja min
li min tefandin
dayê
ez niha
ji piyala hesretkêþan
keserkêþan
û serxweþan
hêstirên dilê te
vediwim
û her roj
bi zindîbûna xwe re
dimirim
li ber dîwarên
kolanên hinavê min
yên bênavnîþan
kêlê gora min datîninx

2005-06-09
Stockholm

# Malbata Cemîl Paşa Diyarbekirî û Dr. Qasim Miqdad Cemîl Paşa

**Konê Reş**

Çendî min dixwest ez jî beşdariyê di **Festîvala Rêzgirtina Neteweyî bo malbata Cemîl Paşayê Diyarbekirî li Hewlêra paytext** bikim, lê mixabin ji ber gelek sedeman, ew derfeta zêrîn bi dest min neket.. Erê derfetek zêrîn bû ji bo min. Min di dixwst enamên vê malbata dêrîn ji nêzîk ve nas bikim û bi taybet li Kurdistana azad. Tevî ku ez gelek neferan ji wan nas dikim, bi taybet ewên ku li Binxetê dimînin. Di vê dema dawî de, min du hevpeyvînên xweş bo KurdistanTV amade kirine. Yek bi **Jala xanim**, keça Ekerm beg Cemîl paşa re ye û ya din bi **Mistefa beg**, kurê Mihemed begê Cemîl paşa re ye. Belê navê min di progirama festîvalê de hebû û kêfxweş dibûm ku bi mamoste **Malmîsanij**, **Dr. Kendal Nezan**, **Perwîn xanim**, **Verda xanim** û yên mayî re, têkevim dabaşa malbata Cemîl Paşa Diyarbekrî û em bi hev re kar, xebat û bizava wan di ber kurdewariyê de giftûgo bikin.. Lê mixabin **sînor** bû kelem û ew derfeta zêrîn ji dest min firiya.

Xwendevanên bi rûmet! Nivîsara jêr de hatî, mijara min bû ji bo festîvala rêzgirtina neteweyî bo malbata Cemîl Paşayê Diyarbekirî li Hewlêra paytext. Min Dr. Qasim Miqdad Cemîl Paşa wek mînakek ji vê malbatê ji xwe re hilbijartibû, kerem kin hûn û nivîsara min.

Ji nav van çend malbatên dêrîn ku li bajarê Amedê, heyamê çend sed salan li wî bajarî dijiyan, weke malbata: Zulfî Zade, Birincî Zade, Hacî Îbrahîm Efendî(1) û Cemîl Paşa, ji tevan zêdetir malbata Cemîl Paşa di nav Kurdan de bi nav û deng e û navê bajarê Diyarbekirê, bedena diyarbekirê bi navê wan ve hatiye girêdan û naskirin. Him jî malbata han di warê xebata Kurdperweriyê de hatiye naskirin, nemaze bi van mirovên xwe yên xebatkar û Kurdperwer weke: Omer Cemîl Paşa, Qedrî Cemîl Paşa, Ekrem Cemîl Paşa, Wecdî Cemîl Paşa û hinên din.

Cemîl Paşa, nevîyê Mehmûd Paşa bû. Ji bav û kalên xwe ve li bajarê Diyarbekirê dijiya, lê bi koka xwe ji xelkên Silopîyê ne. Ji ber vê yekê Qedrî Cemîl Paşa, di bîranînên xwe de xwe bi naznavê ( Zinar Silopî ) daye naskirin. Ji berî 300 salî ve Beden û Birca Diyarbekirê dibin hêza destê vê malbatê de bû, yekî dispart ewê din ku heta dawiya wan Cemîl Paşa û kurên xwe bûn.

Di sala 1847 de, piştî ku sultanê Osmanî, mîrê Cizîra Botan, mîr Bedirxanê Azîzî, dîl û sirgûnî Stenbolê û girava Kirîtê kir, hingê berê xwe da Kurdan û bi sed hezaran ji Kurdan koçberî derdora Anedolê kirin. Cemîl Paşa jî li Yemenê kir walî hetanî ku ji şer û belaya wî xelas bin û kesên wek Cemîl Paşa nedin ser şopa mîr Bedirxan, ji ber ku têkilîyên Cemîl Paşa û mîr Berdirxan bihev re hebûn û herêma Diyarbekirê bêtir di bin destê Cemîl Paşa de bû û wiha Cemîl Paşa 30 sal li Yemenê qedandin. Li Yemenê Cemîl Paşa 8 jinên din bi ser dotmama xwe de anîn, ji wan jinan 11 kur û 3 keç jêre çêbûn, 4 kur û keçek ji dotmama wî û 7 kur û 2 keç ji wan jinên din.

Piştî ku Cemîl Paşa 30 salên xwe li Yemenê derbas kirin, vegeriya welatê xwe Diyarbekir û gellek zêr û mal bi xwe re anîn û kurên xwe bo xwendin û zanînê şandin, nemaze li Stenbol û Ewropayê. Wî di sala 1900'an de, li bajarê Diyarbekirê xatira xwe ji gelê xwe xwest û çû ber dilovaniya xwe.

Di dawiya sed salên 19 û despêka 20'an de, kurên Cemîl Paşa di nav rewşenbîrên împeratoriya Osmanî de, ji yên sereke dihatin hejimartin, him jî pir têkilîyên wan bi malbatên Kurdperwer li Diyarbekr û Stenbolê re hebûn..

Li piştî ku destûra 1908'an hate deranîn, kurên Cemîl Paşa jî bi welatparêzên Kurdan ên wek: Bedirxaniyan, Baban û Şemdînan, xebat û bizav kirin, da ku navê gelê Kurd wek gelên Yûnan, Turk û Ereb bilind bikin û wiha doza mafê gelê Kurd li Sultan kirin.

Di sala 1912'an de, Omerê Cemîl Paşa(2) tevî xwendekarên Kurd li Stenbolê, yekemîn komela xwendekarên Kurdan a bi navê " Hêvî " damezirandin, wê demê ew serokê komelê bû. Her wiya wî pêwendiyên dostane bi hin kesên gelên bin dest weke Ereb, Yunan û Ermenan re damezrand.

Lê niha em vegirin ser kurê Cemîl Paşa yê din Qasim ku dibe kalikê Dr. Qasim Miqdad. Qasimbeg ji kurên Cemîl Paşa yên mezin bû, camêr ne kêmî birayên xwe bû, belê ji giştan bêtir barê mabata Cemîl Paşa bi xwe ve hiltanî û di berde dixebitî. Dîwanxaneya wî di bajarê Diyarbekir de, ji her çar dîwanxaneyên din bêtir bi mêvan û dan bû, him jî welatparêzekî dilêş û xemgîn bû.

Dema serok " Wilson " her 14 bendên xwe di sala 1917 an de li cîhanê belavkirin " Qasim beg " komelek Kurdî bi navê " Komela Tealî Kurdî " li bajarê Diyarbekirê ava kir. Bi alîkariya Kurdên welatparêz weke: Dr. Evdella Cewdet, Dr. Fûad Hac Ibrahîmefendî û Memdûh Selîm Beg, wan tayên wê li gellek bajarên rojhilatê vekirin. Him jî danûstandinek bi komelên Kurdî yên Stenbolê re çêkirin, hingê Qasim Beg hate bijartin ku ew li Stenbolê serokê komelê be.

Lê ku em vegirin ser kurên Qasim Beg. Sê Kurên wî ên bi navên: Şemsedîn, Ekrem û Miqdad hebûn.

**Şemsedîn**: Li Siwîs, bajarê Lozanê, bi bira û pismsmên xwe re xwendina xwe didomand. Dema ku şerê cîhanî yê yekemîn dest pêkir vegeriya Turkyê û beşdarî di şer de kir, hetanî ku di sala 1916 an de giha Dêrazorê û di wê salê de çûye ber dilovanya xwe.

**Ekrem**: Wî tevî birayê xwe re li Lozan dixwend. Di destpêka şerê cîhanî de vegeriya Stenbolê û tevlî tevgerên Kurdan bû. Gellek kar di komeleyên Kurdan de meşandine.

Di sala 1919an de, bi mîr Celadet Bedirxan û birayê wî Dr. Kamran Bedirxan re, berî ku peymana Sîverê di navbera hevalbenda û dewleta Osmanî de were mohrkirin, tevî Mêcer Newêl yê Ingilîzî bona vê çendê ku daxwazên gelê Kurd nasbikin li Kurdistana Bakur geriyane.

Di sala 1925'an de, pir têkiliyên Ekrem beg bi Şoreşa Şêx Seîdê Pîran re hebû. Bi hilweşandina şoreşê re, Ekrem beg li Stenbolê hate girtin û hukmê darvekirinê jêre hate dayîn, lê bi hêza zêran hate berdan..

**Miqdad**: Bavê Dr.Qasim, ji kurên Qasimê Cemîl Paşa yê biçûk bû. Dema şerê cîhanî yê pêşîn, herdu birayên wî û pismamên wî ji Ewropa vegriyan Turkyê, hingê rê ji ber xwendina wî li Ewropa hate birîn, vêca bavê wî, ew li Diyarbekir û Stenbolê şande xwendinê. Lê mixabin, vê dawiyê û bi taybetî piştî şoreşa Şêx Seîdê Efendî, cî û war li Turkyê ji ber wan hat girtin, wan jî baş famkir ku nikarin bi hêza zêran nikarin hikûmeta Mistefa Kemal Paşa bixapînin. Hingê jî, Mistefa Kemal paşa navê wan ji Cemîl Paşa guhertibû bi Cemîl Oglo, vêca ji neçarî Miqdad Beg bi birayê xwe Ekrem Beg û bi pismamên xwe re wek: Qedrî Beg (3), Mihemed Beg (4), Bedrî Beg (5), Wecdî Beg ... hwd, di Adara 1929 de, binxetî Sûriyê bûn.

Wiha tevî zarokên xwe, li bajarê Dirbêsiyê û Hesekê kom bûn. Di wê navberê de, komela Xoybûn li Bêrûtê di sala 1927'an de hatibû damezirandin. Vêca tev bûn endamê wê komelê û xwe ji şoreşa Agrî re amedekirin ku ji sînorê Sûriyê ve êrîşî Tirkan bikin, lê mixabin ew armanca wan jî serneket. Di wan salan de eynê sala 1932 an xwedê kurek da Miqdad beg li bajarê Hesekê, navî wî kir Qasim, li ser navê bavê xwe.

**Dr. Qasim Miqdad Cemîl Paşa**
**1932 - 1992**

Dr. Qasim, zarokatiya xwe heya temenê 8 saliyê li bajarê Hesekê û gundê Tehlikê derbaskiriye. Hingê bavê wî mala xwe barkirye Şamê, wiha wî xwendina xwe ya destpêkî, orte û bilind li Şamê bi dawî aniye. Etvî vê jî, hînî gellek zimanan bûye wek: Erebî, Turkî, Franseyî, Ingilîzî. Ji bilî vê çendê ku zimanê Kurdî, zimanê axavtina mala wan bû.

Piştî ku xwendina xwe ya bilind di warê bijîşkiyê li zanîngeha Şamê de bidawî anî, vegeriya bajarê Derbêsyê û li wir kilînîkek vekir. Lê pir lê dom nekir û berê xwe da bajarê Qamişlo'yê. Di roja 7ê Adara sala 1963'an, li wir kilînkek vekir û bi şev û roj, êş û nexweşyên gelê Qamişlo û Cizîrê derman dikir. Bi wî awayî heyamê 28 salan li bajarê Qamişlo jiya, hetanî ku di roja

13.10.1992'an de, çû ber dilovanya xwe.

Di roja 14.10.1992'an de, li veguhastina termê wî ji bajarê Qamişloyê bo goristana gundê Dugirê, piraniya xelkê Cizîrê, bi Kurd, Ereb, Ermen û Siryan beşdar bûn. Termê wî li kêleka mezarê Dr. Ehmed Nafiz Zaza veşartin. Li ser gora wî çend gotin ji bo pesn û şarezayiya wî hatin xwendin. Di dawiy gotinan de, Metran Antiranîk wiha got: "Dr. Qasim, sembola hevgirtina neteweyên Cizîrê ye.. Pîroz be ji wî gelê ku ew ji wan e."

Di çil rojiya wexera wî de, tev neteweyên Cizîrê, diyartitîn kesayetiyên hikûmetî û dost, heval û mirovên wî yên ku ji Şam û Helebê hatibûn, beşdarbûn. Li ser gora wî gellek gotin û helbest hatin xwendin.

Çima Dr. Qasim Miqdad bi vê rêxistina dûr û dirêj ? Gelo ji ber ku bijîşkekî jîr û zana bû..?! Yan jiber ku ew ji malbata Cemîl Paşayê Diyarbekirî bû?!

Vana bi tenê nebûn belku mirovahî, wekhevî û cangorîtiya wî bû.

Dr. Qasim, xwe di ser kesekî re nedigirt û kes jî di ser xwe re ne digirt, tucar rojek ji rojan esl û neseba xwe bi xwe re nekir paye. Tucar negot ku ez kurê Cemîl Paşa me, tucar wî pîşt bi paşnavê xwe ( Cemîl Paşa ) nekir. Tenê bi navê Dr. Qasim Miqdad dihat naskirin.

Dr. Qasim, kes di ser kesî re negirt, tu ferq û cudahiyek di navbera Kurd, Ereb, Ermenî, Siryanî, misilman û Fele yan Êzidiyan de nedidanî. Tev li bal wî wekhevbûn..

Di şevên zivistanî de, cizme dixist lingê xwe û lişûn nexweşên xwe de diçû gundan û taxên dûrî bajêr.

Pere ji xizan û belengazan nedistand, belê gellek caran bihayê derman jî, ji bal xwe ve dida wan.

Mêr bû, ji kesî ne ditirsiya, ne ji Şêx û Qeşan û ne ji hêzên dewletê û piraniya wan pêre dost û hevalbûn..

Dr. Qasim egît bû, li şûn malê dinê neçû, heke lişûn de çûba wê niha çend qonaxên wî hebûna. Ji ber vê çendê 28 salên xwe yên dawîn, di hotêla Semîr Emîs tevî kurên Baho li bajarê Qamişlo derbaz kir.

Rast e jin ne anî û bê ku bedena wî şîn bibe çû ber dilovaniya Xwedê, wî jî ev yeka baş dizanî, lê wî tev nexweşên ku diçûn bal wî wek zarokên xwe didîtin û di piraniya wan de di dît ku tiştek ji bilî çêkirina zarokan nayê. Çêkirina zarokan pêve, vêca pêwîst didît ku rêya tendiristiyê nîşanî wan bide da ku di pêşerojan de saxlem bin û karibin tiştekî hêjayî xwe û yên derdora xwe re pêk bînin. Ji ber ku wî raman û xebata rast û dirust di beden û laşê saxlem de didît. Ne di yê nexweş de. Vêca dixebitî Ku laşan saxlem bike, ne ku peran bi dehev wek doktorên îro.

Wiha di wê navberê de, jin jibîr kir û xwe di nav bera mirovhezkirin û mirovparêziyê de jibîr kir.

Dr. Qasim, pir jîr û zîrek bû. Çawa ku me got, di warê zansit û zanînê de, kêm kes li Sûrîyê de mîna wî bûn. Mirov ne dizanî, Dr. Qasim, bijîşke, yan dîrokzane. Kêm zêde di her warî de xwedî zanîn bû. Bi gotina dostên wî yên nêzîk ku ji min re gotin: "**Dr. Qasim Miqdad ansîklopîdyake li ser dû lingan bû**".

Dr. Qasim di warê Kurdîtiyê de ne çav girtî bû. Lê lişûn salixdanên tevgera Kurdan bû û di salên dawîn de hêviyên wî bi welatekî rizgarkirî pir mezin bû. Tiştê jê dihat xwestin dikir û Dida. Mirov dikare wî bixe rêza wan doktorên ku canê xwe gorî xaka Kurdistanê kirine wek: Dr. Evdula Cewdet, Dr. Fûad, Dr. Ehmed Nafiz Zaza û hinên din.

Bi baweriya min, mirovê ku dev ji jiyana xwe berde û jiyana kesên li dordora xwe xweş û geş bike, ew mirov mêre û çi mirovê ku êş û nexweşiyên xwe jibîr bike, bi êş û nexweşiyên xelkên li dora xwe ve bixebite, ew mirov giranmêr e, hêjayî pesn û şabaşan e.

Dr. Qasim, yek ji van giranmêran bû. Camêr jiyana xwe tevde diyarî gelê Cizîrê bi tev netewên ku têde dijîn kir. Qet rojek ji rojan li ola mirov ne pirsî, bi tenê berguhka wî di guhên wî de bû û destên wî janên nexweşan dihejmartin. Wiha bi jîr û zîrekiya xwe rapor û lîsteya dermanan ji nexweşên xwe re dinivîsandin. Pirrî caran nexweşên wî bi dermanên wan lîsteyan baş dibûn, bêtir ji dermanên lîsteyên doktorên Şam û Helebê yên bi teybetî. Sed rehmet li giyanê wî biba re, bihişt cî û warê wî be..

Perawîz û jêder :

1- Dr. Fûad yê ku li Diyabekirê bi şêx Seîd re hatiye bidarvekirin, kurê Hacî Ibrahîm Efendî ye...

2- ta roja îro zarokên Omerê Cemîl Paşa li dervî kurdistanê dijîn, nemaze li Edirne û Stenbolê wek: Dr. Farûq û Dr. Cemîl û Kemal Sahib..

3 – Qedrî Beg ( Zinar Silopî ): Di sala 1946 an de wek nûnerê Kurdên Binxetê çû Mahabadê bo pîrozkirina Komara Demoqrat, zarok jêre nebûn ew xalê Dr. Qasim bû.

4 – Mihemed Beg di dawiya sala 1992 de li gundê xwe ( dade Ebdal ) çû ber dilovanya Xwedê, nuha kurê wî Mistefa Beg li eynê gund dimîne, nêzîkî Serê Kanyê

5 –Du kurên Bedrî Beg li Sûryê dimînin yek Dilawer e, derman xaneyek wî li Helebê ye, yê din Welîde li Şamê akencîye.

6 - Qedriyê Cemîl Paşa ( Zinar Silpoî ) – Doza kurdistan ( bîranîn ) Erebî

7 - Dr. Celîlê Celîl: Nehdet elekrad elseqafiye we elqewmiye 1984- bi Erebî

8 - Kamîran Haco, dîrok û şax û paxên dara malbata Cemîl Paşa ji devê Dr. Qasim girtibû û nivîsibû, tev dane min ..

9 - Di herdû salên dawîn de têkilyên min bi Dr. Qasim re hebûn, pirê caran min jê dipirsî li dor malbata Cemîl Paşa, wiha ez serwextî gelek nûçeyan bûm.

## Li Qesra Pirtûkan Ya Kanzelsberger A Bajarê Pragê Konfernasek Li Ser Naveroka Pirtûka Dr. Yekta, "Ez Îfade Didim" Pêk Hat



Dr. Yekta û Mîna Qasimlo

Roja 11.12.2007'an, li Qesra Pirtûkan ya Kanzelsberger a bajarê Prag paytexta Komara Çekê, konferanseke mezin û berfireh li ser nirxandina naveroka pirtûka **"Ez Îfade Didin"** a Dr. Yekta Geylanî (Uzunoglu) û "Petr Zantovsky" pêk hat.

Konfernas ji aliyê berpirsiyarê Qesra Pirtûkan ya Kanzelsberger'ê "Filip Tomas" ve hatibû amade û organîzekirin. Di konferansê de "Petr Zantovsky" - rojnamevan û nivîskarê pirtûkê -, Serokê Saziya "Charta 77"'ê - ku Şoreşa Qedîfe ya sala 1989'an pêk anîbû – "Prof. Frantisek Janouch", Serokê "Helsinki Komitee"yê Dr. "Libuse Silhanova", Dr. Yekta Uzunoglu – wek nivîskarê pirtûkê – û "Marek BENDA (Parlamenterê Partiya Rast ku îro di desthilatê de ye) Serokê Komîsyona Edaleta Parlamentoya Çekê wek şîroveker cih girtin.

Di nav mêvanên konfernasê de Serokê PEN'a Çekê, "J. Dedecek, Cihgirê Serokê PEN'a Çekê "J. Stransky, Cihgirê Serokê PEN'a Çek "Jana Cervenkova" û dehan siyasetvan, nivîskar, rojnamevan û kesayetiyên payebilind hebûn. Keça şehîdê nemir Dr. Qasimlo, Mîna Qasimlo jî beşdar bû.

Serokê Komîsyona Edaletê ya Parlamentoya Çekê, rêzdar Maerk BENDA bi awayekî vekirî soz da ku di nav van çend rojan di Parlamentoya Çekê de komîsyonek taybet ji bo lêkolîna naveroka vê pirtûkê were sazkirin û tev partiyên siyasî ên ku di Parlamentoyê de ne, di vê derbarê de yekdeng in.

Seroka "Helsinki Komitee"yê Dr. "Libuse Silhanova" – hevsera Profesor Dr. "Venek Silhan" – ku mamostayê Şehîd Dr. Qasimlo bû – di gotara xwe de got: "Em gelê Çekê serhişkiya ku li hember bêheqiyê nayê gotin û nakeve ber rayan, ji Dr. Qasimlo û Dr. Yekta Uzunoglu hîn bûn. Gelê me qerdarê van her du kesayetiyên Kurd e ku em hînî serhildanê li hember bêedaletî û neheqiyê kirin. Divê her zarokek Çekî di Dibistanê de vê pirtûka giranbiha bixwîne û jiyana birûmet nas bike."

Di konferansê de aliyên cuda cuda ên pirtûkê hatin nirxandin û beşdaran jî dîtin û rayên xwe anîn ziman.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**



# Amerîka Daxwaza Çareseriya Aştiyane Ya Pirsa PKK'ê Dike

Dîl Deylî, Şêvirmendê Wezîra Derve ya Amerîkayê ragihand ku welatê wî bi tu awayekê li gel çareseriya leşkirî de nine û li gel çareseriya aştiyane ya pirsa PKk'ê de ye.

Wî da zanîn ku ew him li nava Turkiyê û him jî li nav Îraqê de tevî rêya leşkirî ninin û dixwzin pirsa han bi rêya siyasî were çareser kirin.

Herweha got ku rayedarên Îraqî û Herêma Kurdistanê bi başî rê ji ber gihîştina alîkariyên madî bi PKK'ê girtine û sînorên xwe konterol dikin.

Dîl deylî zêde kir û got ku PKK jî li



gel çareseriya serbazî de nine û daxwaza çareseriya siyasî dike. Bo mînak jî îşare bi azadkirina ew 8 serbazên tirk yên êxsîr ji aliyê PKK' ve kir û ew gav bi girîng hesiband.

# Li Elwaca Urmiyê Kurdekî Biemr

Hecî Salih Rencberî, Xelkê şehreka Elwacê ser bi bajarê Urmiyê li Kurdistana Îranê ye.

Ew îsal di 117 saliya xwe de dijît. Hecî Salih li sala 1270'ê Rojî li gundê Aşk û Balûlana ser bi devera Tirgewer a Urmiyê hatiye dinê. Paşan koçberî gundê Tezekend (Kanîqîzanê) û dûre ji şehreka Elwacê bûye. Ew niha li şehreka Elwacê dijît. Hecî Salih bavê 6 kur û 4 keçan e herweha 89 nevî û 154 nevîçirkê wî hene. Li deverê de mirovekî naskirî, oldar û mezin e, xwedî qedr û rûmetek zaf di nava gel de ye, gelek caran ji bo çareserkirina pirsên malbatî, eşîretî û karên xêr ji wî tê mifah wergirtin.

Mirovek nexwende ye, lê bi başî dikare bixwîne, bi taybetî para herî zaf a demên xwe mijûlê xwendina quranê dike, herweha şehrezayiyek baş di karê şikestebendiyê(sinixçî) de heye, lê niha bi sedema kêmbûna hêz û qaweta xwe bi başî nikare wî karî encam bide.

Dema ku mirov diçe bal wî, ji meraq û



keyfxweşiyan nikare rabe û matmayî dimîne. Tûrikê wî tejî ye ji serpêhatî, bîranînên tal û şîrîn, şerê kurd û Ermeniyan, şerên cîhanî yên yekemîn û duhemîn û ...

Hêjayî gotinê ye ku Hecî Salih niha jî li ser xwe ye û dikare bibîne, bibihîze û li ser lingê xwe jî bimeşe. **Amadekar: Selîm**

# Di şeva yekem De Serê Jina Xwe Birrî

Li gorî Puk media yê, li devera Şerqiye ya Misrê de mêrek di yekem şeva çûne bal hevsera xwe de, ew bi boxtana wê ku keç nine û jin e, serjêkir.

Dema ku cîranên nêzîk bi bûyerê guh ji qîjeqîja jinê bûn ku daxwaza hevkariyê dikir, çûne cihê bûyerê û mêze kirin ku Hoda ya 23 salî li sokirê de hatiye serjêkirin.

Hodaya bûk li nexweşxaneyê de berî wê ku rih bide ji cîranên xwe re eşkere kirbû ku mêrê wê ew kare kiriye.

Her piştî bûyerê, polîsan tawanbar girtin û di lêkolînan de îtiraf kir ku ji ber wê ku li yekem şeva jiyana hevpar a xwe de nekariye bibe bi zawa û perdeya kiçîniyê kun bike, û wiha fikiriye ku ew keç nine û têkiliya neşerîî bi kesekî din re hebûye, lewre ew kuştiye.

# Kurdeka 20 Salî 4 Zarok Bi Hev Re Anîn

Avesta- Jineke 20 salî ya Kurd ji Batmanê **4 zarok** bi hevre anîn. Jina bi navê Fehîme Omğan, 3 keçik û lawek anîn dinyayê.



Doktor û pisporên jinan dibêjin ji nava mîlyonek jin, li Tirkiyê de jinek 4 zarokan bi hev re û di carekê de tîne.

Zayîna bi riya sezaryenê di bin çavdêrî û kontrola Dr. Ehmed Yalınkaya de çêbû.

Giraniya bebikan di navbera 1 kîlo û 900 gram û 2 kîlo û 300 gram de ye.

Bavê zarokan Mehmet Omğan, ku bi xwe jî Batmanî ye, Kurdekî bêkar e û tu dahatek wî ya xwedîkirina malbatê tune ye.

Dr. Yalınkaya got rewşa dayîkê û zarokan gelekî baş e.

# Zîrveya YE'yê Morala Tirkiyeyê Xerab Kir

**Mijara endametîya Tirkiyeyê a bo Yekîtîya Ewropayê neket rojeva zîrveya serokên dewletên YE'ê li Brukselê. Ev yek bû sedemê nerazîbûna dewleta tirk.**

Encama zîrveya serokên dewletên Yekîtîya Ewropayê (YE) hate eşkerekirin. Ne endametî û ne jî beşdarbûna Tirkiyeyê ya bo YE'ê di danezana zîrveya YE'ê de cîh negirt. Tirkiyê ev helwesta YE'ê wek bêhiqûqîyek binav kir.

Tirkiyeyê weke her gav, îcar jî Fransa tawanbar kir û berê xwe da Serokkomarê Fransayê Nicolas Sarkozy û got: "Sarkozî dixwaze endametiya Tirkiyeyê bo YE'ê bloke bike."

Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan teselî da raya giştî ya Tirkiyeyê û got: "Pêvajoya endametiya YE'ê didome, divê kes senaryoyên karesatan ji xwe re nede çêkirin.

**Netkurd**